Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 52
30'ê November
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Li Îran Û Kurdistanê Tund Û Tûjiya Li Dijî Jinan Berdewam E

25'ê vê mehê, Roja Cîhanî ya Rakirina Hemû Awayên Tund û Tûjiyê li Dijî Jinan bû. Lê mixabin li Îran û Kurdistanê hêj maf û azadiyên jinan bi xurtî tên binpêkirin û nîviya qada civaka Îranê di rewşeke dijwar û di bin tund û dijwariyên herî xurt jiyanê diborînin.

**Nûçe û raporên berfireh di Rûpela 7 û 8'an de...**

"Henry Kissinger":

# Turkiye Ji Avabûna Dewleteke Serbixwe Ya Kurdî Ditirse



"Henry Kissinger", Wezîrê Karê Derve yê berê yê Amerîkayê, rewşa niha ya Îraqê pir xirap û aloz û cihê nigeraniyê da zanîn. Wî di hevpeyvîna xwe ya bi ajansên nûçeyan yên Almanê re da zanîn ku ez ji hizr û ramana ku cehdê dike hêzên xwazyarê dawîanîn bi nearamî û aloziyan di Îraqê de li dora hev kom dike, piştevaniyê dikim.

Wî herweha zêde kir û got ku hêzên herêmî ger armancên cuda jî hebin, lê dikarin di vê derheqê de bi hev re hevkariyê bikin. Di vê derheqê de îşare bi Turkiyayê kir û got ku Turkiye tirs ji avabûna dewleteke serbixwe a Kurdî heye û zêde kir heya dema ku aramî û tenahî di deverê de pêk nehê, Îraq jî tenahî û asayişê bi xwe nabîne.

## Konfransa "Îrana Îro - Kurd Û Neteweyên Din Di Opozîsyonê De" Li Almanya




Di rojên 24 heya 26'ê meha 11'an a 2006'an, li Bajarê **Bad Boll** ya Almanya, Konferansek li ser navê **"Îrana Îro - Kurd Û Neteweyên Din Di Opozîsyonê De"** birêve çû. Konferans ji aliyê saziya Almanî ya bi navê "**Evangelicshe Akademie**" û Navenda Navneteweyî ya Mafên Mirovan ji bo Kurdan (IMK), hate çêkirin. Di vê konferansê de bi giranî li ser rewşa Kurdên Îran û herweha li ser rêxistinên netewî yên opozîsyonên Îranê hate sekinandin. Gelek nûnerên rêxistinên opozîsyon û akademîsyen beşdar bûn... Ji aliyê PDK Îranê ve **Dr. Mîro Eliyar**, beşdarî vê konferansê bû û li ser **Kongireya Neteweyên Îrana Federal** û rewşa Kurdên Îranê bi berfirehî axifî. Ji bilî Dr. Mîro Eliyar, nûnerên netewên din yên Îranê jî axaftinên xwe pêşkêş kirin. Di konferansê de herweha beşdar û rojnamevanan jî pirsên xwe ji axaftinvanên konferansê re kirin û danûstandinên germ hatin çêkirin...

Nûçegihanên TÎŞK TV li wir bûne û dê di rojên pêşiya me de ew konferansa di Tîşk Tv dê bê belavkirin. **Çavkanî: "TISHK TV"**

**Birêz Elî Mêhrperwer Di Hevpeyvîneke De Bi Radyo Dengê Kurdistana Îranê Re**



2

**Kîjan Alî Di Terorkirina Piyar Cimeyîl De Dest Heye?**



3

**Dr. Roya Tilûî'ê Xelata "PEN AWARD" Ya 2006'an Bir**



4

**Kurd Êdî Dîroka Xwe Bi Xwe Dinîvîsin!**




4

**DIBISTANA NIVÎSKARAN: ÎNTERNET**



9

**KONFERANSA ZIMÊN**



10

**Peyama Kofî Enan Bi Hinceta Roja Cîhanî Ya Rakirina Hemû Awayên Tund Û Tûjiyê Li Dijî Jinan de**



**Rûpela 7**

**RMMK:**

**"Divêt Sedem Û Alavên Tund Û Tûjiyan Li Dijî Jinan Were Rakirin"**




**Rûpela 7**

**Birêz Elî Mêhrperwer Di Hevpeyvînekê De Bi Radyo Dengê Kurdistana Îranê Re:**

# "Siyasetên Demokratan Jî Nikare Cudahiyek Wiha Tevî Siyasetên Komarîxwazan De Hebe"

Li midehê meha borî de çend bûyerên girîng di asta Kurdistan, Îran û cîhanê de bûne cihê bas û nîqaşan û navendên siyasî û medya û ragihandinên giştî jî bi pûte û girîngiyeke taybet ew mijar xistine rojevê.

Di nava wan pirs û bûyeran de çend meseleyên girîng weke: Ragihandina agirbestê ji aliyê PKK'ê ve û helwesta Turkiyê, rewşa niho ya Îraqê, hilbijartinên vê dawiyê yên SENA û Parlemana Amerîkayê, hilbijartinên Meclîsa Xobregan û Şêwrên Gund û Bajaran li pêşerojeke nêzîk di Îranê de û herweha berdewam bûna pirsa Navikî ya wî welatî bûne bi mijarên hevpeyvîna Radyo Dengê Kurdistana Îranê tevî birêz Elî Mêhrperwer, endamê Deftera Siyasî ya PDK Îranê û berpirsê Komîsyona Çapemenî a partiyê.

**Pitir ji mehekê ye ku PKK'ê li ser daxwaza aliyên hindur û derve agirbest îlan kir û weke bi xwe daye zanîn dê xwe bo heyameke demkî ji pevçûnên bi hêzên Turkiyê re biparêzin. Lê weke em dibînin ev agirbeste heya niha jî yek alî bûye û rayedarên Turkiyeyê jî didin xuyakirin ku PKK'ê bi fermî nas nakin û dê êrişên xwe jî bo ser hêzên PKK'ê bidomînin. Birêz Mêhrperwer hûn wan bûyer û helwestane çawa dinirxînin? Gelo hûn bawer in ku dê encameke baş hebe?**

Agirbest û desthilgirtin ji şer di nefs û hindurê xwe de tiştek baş e, lê gelo ev agirbeste encameke siyasî a dilxwaz dê hebe yan na, eva meseleyeke din e, çunku agirbestê pêwendî bi vê rewş û zirûfê ve heye ku têde hatiye ragihandin. Gelo ev agirbeste bo tenahî û aramkirina rewşê ye heta ku derfeta gotûbêjan di navbera du aliyên şer de pêk bîne? Gelo vê agirbestê çiqas girîngî û pûte bo aliyê beramber heye, aliyê beramber jî xwazyarê wê ye yan jêre girîng nine? Gelo aliyê beramber pêşwazî ji wê agirbestê kiriye yan ret kiriye? Herwek di pirsyara we de jî hatibû dewleta Turkiyê dest ji êrişên xwe hilnegirtiye yan bi wateyeke din bersiva erênî jêre nedaye.

Renge ev agirbeste parek ji proseseke mezintir be û ji bo bi encamgihandina piroseyê hewce be. Ger em lênihêrînekê bi dîroka şerê PKK'ê û Turkiyê bikin, eva çend agirbest in ku mixabin ji aliyê dewletê ve bersiva erênî wernegirtine.

Dewleta Turkiyê PKK'ê weke hêzeke terorîst nas dike û amade jî nine ku pêre bikeve danûstandin û gotûbêjan. Weke di nûçeyan de tê bas kirin, Amerîka, Turkiye û Îraq, heyetek hevpar ji bo pirsa PKK'ê pêk anîne, ji bo destvekirîbûna heyetê jî li pêxema çareserkirina pirsê, agirbest dikare alîkar be. Serkevtina proseyê heya qaseke zaf girêdayî bi micidbûna Amerîkayê bo çareserkirina pirsê ye. Amerîka di peymana leşkerî a Natoyê de hevalbendê Turkiyê ye. Ji aliyekê ve Amerîkayê hewcehî bi ragirtina pêwendiya dostîniya bi Turkiyê re heye, him Turkiya jî pûte û girîngiyê ji hevalbendiya bi Amerîkayê re dide, ji aliyên din jî Amerîka xwazyarê êrîşa leşkerî a Turkiyê bo ser binke û navendên PKK'ê li axa Kurdistana Îraqê nine, çunku rewşa deverê dê aloz bibe û aramî û tenahiya herêma Kurdistanê namîne, lewre ragirtina dostîniya Kurdên Kurdistana Îraqê ji Amerîkayê re girîng e. Amerîka çiqas bikare Turkiye û Kurdên Turkiyê ji hev nêzîk bike û formoleke cihê qebûlkirina hemû aliyan bo vê pirsê peyda bike, ew di pêşerojê de dê eyan bin. Di vê navberê de rola Yekîtiya Ewropayê ji bo givaşxistin li ser Turkiyê ku mafên çandî û siyasî yên Kurdan misoger bike, divêt weke sebeb û faktereke erênî bihê hesibandin. Pêvajoya bûyeran heya niha nîşan daye ku Turkiye ne amade ye bi PKK'ê re dakeve gotûbêjan. Ev pirse tenê girêdayî bi vê çendê ye ku fakterên derekî çiqas dikarin karîger û bibandor bin.

**Wiha dihat çavnihêrîkirin ku piştî bi dawîhatina meha Remezanê, tund û tûjî li Îraqê de kêm bibin. Lê teqînên li dû hev yên Bexdayê ev raye guherîn û midehek e ku medya û ragihandinên giştî bi awayekî din qala pêşeroja Îraqê dikin. Rayedarên Amerîkî jî derheq asayiş û tenahiya Îraqê hin pêşniyarên nû derxistine holê. Bo mînak "Cêms Bêkir", Wezîrê Derve yê berê û Serokê desteya Kongireyê bona pêşgirtina siyaseteke nû ji aliyê dewleta Amerîkayê di Îraqê de, di nava rêçareyan de, parvebûna Îraqê aniye holê. Bi raya we li gor rewşa niha ya Îraqê, parvebûna Îraqê heya çiqas dikare tevî rastiyên siyasî yên vî welatî de be?**

Êrîşa Amerîkayê bo ser Îraqê û hiloşandina wî welatî, di bin dirûşma cîgirkirina demokrasî û avakirina hikûmeteke demokratîk di Îraqê de bû. Her weke em dizanin, hêzên leşkerî yên Amerîkayê ji bo herifandina desthilata hakim bi ser Îraqê de tûşî kosp û astengeke wiha nebû û di mideheke kurt de dawî bi qonaxa yekem a şer anî û karî dest bi ser Îraqê de bigire, lê di birêvebirina welat de rastî gelek şaşiyan bû.

Dijberên hatina Amerîkayê bo deverê, tenê hikûmeta Îraqê û ew para xelkê Îraqê ku di rejîma berê de xwedî berjewendî û poanên zaf bûn, nebû, ji ber ku welatên ku rejîmên dîktator têde desthilatdar in, hatina Amerîkayê bi tirsek mezin bo ser rejîmên xwe dizanîn. Lewre bi neyarên hindurê Îraqê re ketin hevkarî, maytêkirin û sînorên xwe bo hat û çûna terorîstan vekirî hiştin, Îran û Sûriyeyê di vê derheqê de rola sereke lîstin. Ji bilî wê jî dest bi dest bûna desthilatê li nav civaka Îraqê, anku ji Sunî bo Şîiyan û heya qasekê jî bo Kurdan, Şîî û Sunî li hemberî hev de sekinand.



Şîiyên ku bi dirêjahiya jiyê hikûmeta berê hatibûn çewisandin, him desthilat bi dest girtin, him jî siyaseta tolhildanê ji Suniyan li pêş xwe girtin. Ger eva siyaseta hemû Şîiyan jî nebe, aliyê kêm hin girûpên ku pêwendiyeke xurt bi Îranê re hene, birêveberên vê siyasetê bûn. "Elqaîde" jî di vê navberê de û ji rewşeke jêhatî ku jêre pêk hatibû, ji aliyekê tevî hêzên hevalbendan şer dikir û ji aliyê din jî agirê şer di navbera Şîî û Suniyan de gur û xurttir dikir.

Niha pêtir ji vê ku tund û tûjî rû ji hêzên hevalbendan bin, rû ji xelkê sivîl yê Îraqê ye. Merema sereke ya terorîstan, kuştin û têkdana aramî û tenahiya vî welatî ye. Vêça kuştina jin, zarok, karker, polîs, kasibkar û ... be, ji wan re ferq nake. Her li rex vê yekê de, kuştina Şîî û Sunî, şerê mesebî û desthilatê di nava wan de her roj bi dehan kuştî û birîndaran dide.

Radestkirina desthilatê ji aliyê Amerîkiyan ve bo xelkê Îraqê di destpêkê de, şaşiyên taktîkî yên piştî hev yên bona rêvebirina welat, maytêkirina Îran û Sûriyayê, teyîsandina şerê navbera Şîî û suniyan, Amerîkî anîne ser vê bawerê ku ger stratejiya xwe neguherînin, aliyê kêm hin senaryoyan bona aramkirina rewşê bikar bînin, weke parvekirina Îraqê bi ser sê deverên Sunî, Şîî, Kurd akincî.

Diyare ev senaryoye jî asteng û pirsgirêkên taybet bi xwe hene, çunkî neyarên vê senaryoyê jî kêmtir ji neyarên dagirkirina Îraqê ninin. Ji bilî wê jî bas ji vê tê kirin ku bo aramkirina rewşê, Amerîka bi Îran û Sûriyayê re bikeve gotûbêjan, taku dev ji maytêkirinên di hundirê Îraqê de berdin. Min jêve ye ku ew jî yek ji wan hewlane ye ku heya niha dane. Ger

siyaseta Îran û Sûriyayê heya niha eva be ku şerê xwe bi Amerîkayê re di xaka Îraqê û bi xelkê Îraqê re bikin û ger bi tewawî jî ne serketî bin, aliyê kêm rewş bi qazancê wan hatiye guhertin, çawan dê dev ji vê siyaseta xwe hilbigirin. Meger eva ku Amerîka îmtiyaz û poanên zêdetir bi wan bide ku eva jî di rastî de tê wateya paşdekişan û têkçûna Amerîkayê û gelek giran dê jêre xilas bibe.

**Di hilbijartinên Parlemana Amerîkayê de, Demokratan serkevtinên berçav bi dest xistin û rengê vê yekê dide ku Serok Komarê gera tê jî ser bi demokratan be. Di rewşeke wiha de hûn siyasetên Amerîkayê derheq Rojhilata Navîn û bi taybet Îranê çawa dinirxînin?**

Sedema serkevtina Demokratan piştî 12 salan bo sedemên cur be cur vedigere. Pirsa Îraqê dikare yek ji wan be. Encama rapirsiyan dide zanîn ku qasê jêhezkirina Buş li Amerîkayê de hatiye bin 40 ji sedê, ku eva jî qaseke kêm e. Eva rast e ku hatine serkar a Demokratan renge hin astengan derxîne pêşberî bernameyên Buş de û weke berê ji piştevaniya kongireyê bê mifah be. Lê divêt em ji bîr nekin ku çi Demokrat û çi jî Komarîxwaz, stratejiyeke hevpar dişopînin, yan bi wateyeke din ev du partiyene bi taktîkên cuda û taybet bi xwe van bernameyan cî bi cî dikin. Nexa li hember qazanc û berjewendiyên Amerîkayê de di hêlekê de diçin pêş û hêla sor jî naborînin.

Derheq pirsiyara we, siyaseta Demokratan jî nikare cudahiyek wiha tevî siyasetên Komarîxwazan de hebe. Di hin waran de jî renge Demokrat tundtir bin. Bo mînak rehîngirtina karmendên Balyozxaneya Amerîkayê li dewrana Demokratan de bû û bi hatine serkar a Komarîxwzan serbest hatin berdan. Herweha nifûz û hitbarta Cihûyan di nava demokratan de zêdetir e, yan bi wateyeke dinê Cihû pêtir bi Demokratan nêzîktir in û helwesta Îsraîlê jî bi nîsbet Îranê rohn û eşkere ye.

Pirsa bidestveanîna çekên Etomî ji aliyê Îranê jî her bi wê qasê ku ji bo Komarîxwazan girîng e, ji Demokratan re jî girîng e û vê yekê bi tirsek mezin bo ser aştiya cîhanê dizanin. Piştevanîkirina Îranê ji terorîzma cîhanî û dijberîkirina bi prosesa aştiyê di Rojhilata Navîn de, pirsek nine ku demokrat çavên xwe li hember de bimiqînin. Her wekî min berê jî îşare pê kir renge tenê di taktîkên xwe de ferq û cudahiya wan hebe.

Eva ku renge di hilbijartina Serok Komariya tê de Demokrat serkevtî bin, girêdayî bi domkirina vê rewşa niho ye, lê bo pêşdîtinên rast, hêj zû ye, çunku pêvajoya guhertinan û serkevtinên Amerîkayê dikare bandor û tesîr li ser raya giştî hebe.

**Bi baldan bi birêveçûna du hilbijartinên "Meclîsa Xobregan" û Şêwrên Gund û Bajaran di pêşerojeke nêzîk de ku partiya Demokrat a Kurdistana Îranê jî ev hilbijartinane baykot kirine, gelo Komara Îslamî heya çiqasekê dikare ji rêya wan hilbijartinane ve demê derheq pirsa etomî ya xwe di gotûbêjên tevî aliyên pêwendîdar de, heder bide(bikuje). Bi giştî hûn pêşerojê çawa dibînin?**

Min jêve ye ku ev hilbijartinane bi taybet hilbijartinên Şêwrên Gund û Bajaran, karîgeriyeke wiha li ser gotûbêjên bi welatên 5+1 nake. Ev diyalog bi qasê micidbûna welatên Ewropayê, Çîn û Rûsiya ye di berengarbûna bi Îranê re girêdayî ye. Vê gavê Amrîka ji hemûyan micidtir e, piştre Ewropayî. Lê Çîn û Rûsiya ne tenê bo givaşanîna ser Îranê ne micid in, belkî dijberê derkirina her biryarnameyeke tund û tûj in ku di Konseya Ewlekariyê de li dijî Îranê der biçe û Îranê jî pir bi başî kariye ji vê valahiyê mifahê bistîne û ji demê mifahê bistîne û demê jî heder nede, ji ber ku ji demê bo pêşvebirina bernameyên xwe mifahê distîne. Prosesa baykot û hisara ji aliyê Konseya Ewlekarî bi ser Îranê de bi vî awayê ku diçe pêş, rengê vê hindê nade ku ne zor tund û rijd bin, ne bi zûyî jî biryar tê dayîn û ne jî zaf dê birêve biçin. Heya niha di wan rikeberanêyane de, tenê Îranê qazanc kiriye.

**Wergeran: Selîm Zencîrî**

# Kîjan Alî Di Terorkirina Piyar Cimeyîl De Dest Heye?

**Selah Muradî**

Sibêdeya roja sêşem, 21.11.2006'an, "Piyar Cimeyîl", Wezîrê Pîşesaziya dewleta Lubnanê hate terorkirin. "Piyar Cimeyîl" endamê Bizava Siyasî Mesîhî ya "Palanj"ê û yek ji dijberên Sûriyê di kabîneya Fuad Sînyora, Serok Wezîrê Lubnanê û serokê girûpa 14'ê Marsê bû. Endamên vê girûpê li pey terorkirina Refîq Herîrî, karîn ji ber dijber'kirina li tevî hebûna hêzên Sûriyê di Lubnanê de û maytêkirina Sûriyê di kar û barên hundirîn yên vî welatî de, di hilbijartinên Parlemanê de piraniya dengan bidestve bînin û dewleteke demokratîk û serbixwe li dijî Sûriyê pêk bînin. Lewra ew ketin ber kerb û kîna rejîam Bees ya Sûriyê û heya hin caran jî rasterast û nerasterast gefa kuştinê ji wan hate kirin.

Di du salên borî de, dewleta Lubnanê ber bi guhertinên demokratîk û pêkhatina welateke xweser gav avêtiye û eva pêncemîn kes ji dijberên Sûriyeyê ye ku di vî welatî de tê kuştin.

Her li şûn qewmîna vê terorê de, pirsa vê çendê ku gelo birêvebir û biryarderên vê terorê dikare çi kes, alî û welatek bibin? di raya giştî ya civaka navneteweyî de derkete rojevê. Rejîma Bees ya Sûriyê bi liberçavgirtina vê yekê ku di terorkirina Refîq Herîrî de, weke gumanbarê sereke neçar bû ji Lubnanê derkeve der û vî welatî xelkê Lubnanê de ji hikûmeta Bees a Sûriyê re, ne tenê tu hezkirin û hevbendiyek nehêlaye, belkî rûçikek xirab jê re bicih hêlaye. Lewra ye, bi liberçavgirtina rewşa aloz ya siyasî a Lubnanê û dijheviyên navbera partî û aliyên siyasî û olî ên cuda cuda û ji hemûyan girîngtir, hebûna alîgir û kirêgirtiyên Sûriyê di hikûmeta Lubnanê de (weke Îmîl Lahod, Serok Komar û Hizbulaha Lubnanê û endamên wê di Parleman û kabîneya Sînyora de) egera vê çendê gelek xurt e ku bicî bihêle, di vê kiryara terorîstî de jî wekî yekem berguman hate dîtin. Ji ber ku ew guhertinên demokratîk yên ku di salên derbasbûyî li Lubnanê de pêk hatine, qazanc û berjewendiyên Sûriyê di vî welatî de xistibûne ber tirsê û di nava piraniya dewleta Sûriyê ji bo lawazkirina dewleta Fuad Sînyora û pêvajoya demokrasîxwaziyê di Lubnanê de rastî têkçûnê bike, dest bavêje terorkirina dijberên xwe di kabîneya Sînyora de û bi vî awayî vê dewletê neçar bi paşdekişyanê bike.




**Di terorkirina Wezîrê Pîşesaziya Lubnanê de Dewleta Sûriyê weke gumanbar hate zanîn**

# Dr. Roya Tilûî’ê Xelata “PEN AWARD” Ya 2006’an Bir

Bajarê Lahê li Holandayê roja şemî, 27.08.1385(18.11.2006)’an, mêvandarê rê û resma rêzgirtin ji çalakiyên sivîl(medenî) û mafê mirovan yên Xatûna Dr. Roya Tilûî’ê bû.

Di rê û resma han de ku ji aliyê tayê Holandayê ya Civata Pênûs(PEN AWARD)’ê û bi hevkariya Navenda nedewletî ya “Oxfan Novib” birêve çû, xelatên diyarîkirî û tabloya rêzgirtin bi pênc kesan re hatin pêşkêş kirin ku yek ji wan Dr. Roya Tilûî bû.

Di vê rê û resmê de ku hejmareke zaf kesayetiyên siyasî, civakî û çandî yên welatê Holandayê û xelkê sivîl tê de beşdar bûn, di destpêkê de rêz li 5 nivîskarên akincî yên wî welatî hate girtin. Piştre birêz Rudelf Gîl, Serokê tayê Holandayê yê “PEN AWARD”ê axavtinek kir. Di axavtinên xwe de navhatî bal kişande ser merema pêşkêşkirina wê xelatê ji aliyê “PEN”ê ve û got: Xelata “PEN AWARD” Oxfam Novib’ê bi merema pêzanîn û rêzgirtin ji erk, mandîbûn, hewl û zextên wan kesan re hatiye danîn ku li rêya pênûs û nivîsaran ve hakimên zordar û gemar dişopînin û rûsar dikin”.

Li doma rê û resmê de birêz Bak Van Birandî, Serokê Navenda “Oxfan Novib”ê basek pêşkêş kir û armanca rêxistina xwe li piştevaniyê ji “PEN AWARD”ê bi vî awayî anî ziman: “Armanca me li piştevanîkirin ji wê xelatê, rêzgirtin e li çelengî û biwêriya wan kesan ku bêy tu piştevaniyekê û bi awayekî aştîxwzane û bê penabirin bi tund û tûjiyê li dijî desthilatdarên dîktator radiwestin û ne kêm in ew kesên ku di vê rêyê de rastî zirarên madî û canî heta mirinê jî hatine”.

Serokê şaredariya Lahê, birêz Wîm Dîmten jî keyfxweşiya xwe li mêvandariya ji wan nivîskar û çalakên biwêr xuya kir û agihand: “Piştevanî û parastina wan kesên ku bi awayê aştîxwazane, hêmin û medenî ji bo azadî û mafê mirovan xebatê dikin, erkê Civaka Navneteweyî ye”. Navhatî tevî xwendina navên wan kesan ku dihatin xelatkirin, got: “Divêt ku em rêz û hurmetê ji erk, newestiyan û berxwedana wan kesane bigirin”. Bo mînak bi kurtî bal kişande ser jiyan, xebat û derd û janên Dr.Roya Tilûî’ê û ew hêjayî piştevaniyê ji bo biarmancgihandina xebata wê zanî.

Navhatî xelat û tabloya rêzgirtinê pêşkêşî birêz Hirand Dîn û Dr. Tilûî’ yê kir û got: Hirand Dînak ji Ermeniyên xelkê Turkiyê ye û neçar hatiye kirin ku bi zimanê diya xwe neaxive û ji ber vê yekê ku bi nivîskî daxwaz kiriye ku dewleta Turkiyê, divêt Komkujiya Ermaniyan bepejirîne, rastî binçavkirin û êşandinê hatiye û di encam de neçar bûye welat bi cih bihêle.

Xatûna Tilûî, Kurd, xelkê Îranê û têkoşereke mafê mirovan, jinan û gelê xwe ye. Xatûna navhatî ji wan armancan re bi awayê aştîxwazane û medenî xebat kiriye, lê seba derbirîna bîr û rayên xwe, desthilatdarên rejîma Îranê ew xistine girtîxaneyê û îşkence kirine. Ji ber vê çendê jî bû




ku piştî serbestberbûna bi zemanet neçar ma bireve û di encam de bibe koçbereke siyasî li Amerîkayê de. ji ber vê çendê ye ku îro em li vir de qedr û rêzê ji vê Xatûnê digirin û hêjayî wê xelatê dizanin.

Xatûna Dr. Tilûî, piştî bidawîhatina axavtinên şaredarê bajarê Lahê û pêşkêşkirina xelatan, tevî rêz û hurmetan ji birêveberên “PEN AWARD”a cîhanî û rê resmê, bi nîşandayîna kurte fîlmekê qala rewşa jiyana jin û neteweya Kurd û çalakên medenî û siyasî kir û rûçikê hov yê hikûmeta Îslamî û dest û pêwendiyên wê ji beşdaran re kir. Xatûna han herwiha qala xweşewitandina jinên Kurd û bêmafiya wan him li malbatê û him jî di yasayên hikûmeta Îslamî de kir û bi tevahî ew rewşe mehkûm kir.

Aliyeke din a axavtina Tilûî, bê mafiya gelê Kurd bû, ku bi berfirehî ji beşdaran re şirove kir. Her weke îşare pêhate kirin, Dr. Roya Tilûî’yê, di dema axavtinên xwe de bi nîşandana fîlm û slaydan, belgeyên haşalênekirî ji bo selimandina axavtinên xwe pêşkêş dikirin.

Ji aliyê beşdarên rê û resmê ve, pêşwaziyeke germ û bêmînak ji axavtinên Dr. Tilûî’yê hate kirin û seranserî hola rê û resmê bi lêdana çepikan, ew hesta xwe anîn ziman.

Hêjayî gotinê ye ku hejmarek ji navend, kom û komeleyên Kurd jî beşdarê rê resmê bûn ku mirov dikare ji wan îşarê bi nûnerên Civata Yarsan, Dr. Gulmurad Moradî, nûnerê para Rojhilatê ya Navenda Çak, birêz Elî Rehîmî, birêveberê malpera “Helwist”, girûpa nûçegihan û fîlmhilgir a “TISHK TV”ê bike.

Dr. Tilûî’yê di dawiya rê û resmê de bersiva pirsiyarên rojnamevan û nûçegihanan da.

**Çavkanî: Malpera “Helwist”. 19.11.2006**

Egera vê çendê heye ku piştî Sûriyê, Komara Îslamî ya Îranê wekî aliyekî din di terorkirina “Piyar Cimeyîl” de dest hebe, li dor vê pirsê jî bas û nîqaş di holê de ne. Komara Îslamî ji rêya avakirin û hevkarîkirin tevî Hizbulaha Lubnanê, hertim maytêkirin di nav kar û barên vî welatî de kiriye. Di havîna îsal jî bi haydana Hizbulahê ji bo rehîngirtin û kuştina hêzên Îsraîlê şereke kavilker û bê sedem bi ser Lubnanê de sepand. Komara Îslamî jî her wekî Sûriyê guhertinên demokratîk yên Lubnanê di berjewendiyên xwe de nabîne. Ji ber vê çendê ku piraniya endamên Parlemana dijberê Sûriyê ya Lubnanê û kabîneya Fuad Sînyora, piştî derketina hêzên Sûriyê ji Lubnanê û nemaze li pey şerê navbera Hizbulaha Lubnanê û Îsraîlê û cihgirbûna hêzên aştîparêz ên navneteweyî û hêzên Arteşa Lubnanê li Başûrê vî welatî de, dixwazin ku ev girûpa terorîstî çekan danê û dawiyê bi destêwerdana rejîma Îranê di welatê xwe de bînin.

Çekjêstandina ji Hizbulahê tev hewl û xebatên rejîma Îslamî ya Îranê bi armanca pêkanîna alozî û tevliheviyan di nava axa Lubnanê de bêencam dike û ji vê girûpa terorîstî weke hêzeke kirêgirtî û alîgirê Komara Îslamî ku herdem ji bo terorkirina neyar û dijberên xwe li seranserî cîhanê de û pêkanîna astengan di pêvajoya aştiya navbera Îsraîl û Felestînê de bi kar aniye, bi hêzeke siyasî diguhere ku divêt di çarçoveya qanûnên hundirîn yên Lubnanê û zagonên navneteweyî de bilive û tevbigere.

Ji aliyekî din ve guhertinên demokratîk yên Lubnanê û dewleta Fuad Sînyora ji hêla welatên demokrasîxaz ên Rojava ve bi taybet Amerîkayê bi xurtî piştgirî jê tê kirin û ev welatene cîgirbûna demokrasiyê di Lubnanê de, di pêvajoya cihgirkirina demokrasiyê di welatên Rojhilata Navîn de dibînin. Lewra ye Komara Îslamî û dewleta Sûriyê ku di eniya terorê û li dijî demokrasiyê de cîh girtine, ji tu kiryarekê bona vê çendê ku pêvajoya demokrasîxwaziyê di Rojhilata Navîn de rastî têkçûnê bikin, xwe naparêzin.

**Wergeran: Azad Kurdî**

# Kurd Êdî Dîroka Xwe Bi Xwe Dinîvîsin!

**Husoyê Emîn - Almaniya**

Di roja 18.11.2006'an da bi pêşengiya Komîteya Navenda Almanya a PSK'ê û bi piştgiriya Komeleya Hevaltî Bottrop, Konferansek li ser şerê serhildana Grîdaxê(Agirî) li bajarê Bottropê hate pêkanîn.

Axaftvanê Konferansê birêz Yilmaz Çamlibêl bû. Axaftina Konferansê li ser bingeha zanyarî û dokumentên dîrokî ku birêz Çamlibêl bi xwe, bi ked û emegekî giranbuha di navbera pêncî salî da berhevkiriye û di pirtûka xwe ya bi navê Grîdax bêxwedî nîn e da weşandiye.

Birêz Çamlibêl di sê beşan da li ser serhildana netewî ya Agiriyê sekinî:

**Beşa yekan,** ya ku di bin serokatiya Biroyê Hesikê Têlî da ji 16'ê Gulana 1926'an heta 20'ê Îlona 1927'an ajotibû.

**Beşa Dudyan,** ya ku di bin serokatî û rêberya Xoybûnê da, ji destpêka 1928'an heta Îlona 1930'yî. Li gor agahdariyên birêz Çamlibêl; şerê vê beşêyî herî dawî di navbera 7-14 Îlona 1930'î da pêk hatiye û di vî şerî da leşkerên Tirk, Îran û Sovyetê bi hevra êrîş anîne ser şervanên gelê Kurd û tenê bi vî awayî jî karîbûne bi serkevin.

**Beşa Sisyan,** serhildana ku ji 14'ê Îlona 1930'yi dest pê kiriye û heta payîza 1932'ya ajotiye. Ev berxwedana piştî şikestina 14' Îlona 1930'yî di bin serokdesteyên Kurdan, di dirêjiya hudûdê navbera Kurdistana bindestê Tirkiyê û Îranê da ji ber tunebûna alikarya lojîstîk û çek û cebirxanan û hin sedemên din, tenê karîbûye du salan dom bike.

Herweha birêz Çamlibêl li ser taybetiyên bingehîn yê serhildana Agiriyê jî sekinî û dîtinên xwe weha anî ziman:

- Sehildanên ku berî şoreşa Agiriyê pêk hatibûn, ji ber sedemên civakî û aborî, bi pêşengiya çîna serdest rêvediçûn û taktîk û stratejî jî gorî wê çinê dihate danîn. Di nav serhildana Agiriyê herçiqas Axa, Beg, Şêx û Eşrafên bajarî hebûn, lê her wisa jî têda; ronakbîr û rewşenbîrên leşger û sivîl jî bi xurtî cîh girtibûn. Rola herî girîngtir jî rêxistina Xoybûn dileyîst. Piraniya rêvebir û endamên Xoybûnê li ser pirsa serhildana Kurdistanê xwedî raman û helwestên hevdem bûn.

- Di dîroka Kurdistanê da cara yekê bû ku, serhildanek netewî di bin rêveberiya rêxistinek hevdem da hatibû sazkirin. Her wisa dîsa cara yekê bû partiyek Kurda, armanca serxwebûna welatê Kurda û rizgariya gel ji bin destê dagirkeran kiribû bernama xwe û ji raya giştî ra dabû eşkerekirin.

- Dîsa cara yekem di vê serhildanê da ordîyek bi kincê (cilê)n leşkerî, rutbe û bi nîşan, bi usûlên nîzama leşkerî dihat perwerdekirin, hebû. Li pêşiya kumên leşgeran da nexşê Grîdaxa Mezin û ya piçûk, li ser metalekîva hatibû dirûtin. Her wisa li ser sîngê wana nîşana Xoybûnê û nîşana rutbeyên wan hebûn.

- Konseya serhildanê hatibû sazkirin û wekî parlamentê kar û xebat dikir û biryar digirt. Taînen rêvabirên sivîl û leşkerî derdixist. Li vir tekoşîn, di bin emrê siyasetê da bû. Ango leşger di bin emr û serokatiya kesên sivîl bi rêva diçûn.

- Kurdan di dîroka xwe da cara ewilîn şer bi usûla gerîla bikar dianîn. Bêyî ku çav bidin tecrûbeyên welatek, an jî netewekî din. Biryara vî cureyê şêr di gengeşiya Konseya Xoybûnê da hatibû girtin.

- Girîngiyek jî ew bû ku cara yekê jinên kurd rasterast tevî şerê netewî ya kurd dibûn.

- Di dîroka azadiya Kurdistanê da cara pêşîn bi navê "Ala Serxwebûnê" alek netewî bi kar anîne. Her wisa di gel ala netewî "Sirûda Agirî"yê jî wek sembol hatiye bikaranîn.

- Taybetiyek serhildana Agiriyê jî damezirandina dadgehek netewî bû. Dadgeh ji serokek û ji şeş endaman pêk hatibû.

- Taybetîk jî dewleta Tirka cara ewilîn di vî şerî da tîmên taybetî pêk anîn û van Tîman di Geliyê Zîlan da komkujî û qetlîamek bê însaf kirin.

Herwiha birêz Çamlibêl di derheqa rewşa wê demê û polîtîkayên welatên derdorên Kurdistanê da jî agahdariyên gelek balkêş dan.

Wexta birêz Çamlibêl hûrgilî li ser mêrxasî û cangoriya serwêr û şervanên vê serhildana netewî dikir, dem dem navbera wî û guhdarvanan da deqîqên hissî derbas dibûn. Guhdarvan digel wî car dibûn bi mêrxasî û serketinên şervanên kurd şad dibûn, car jî dibûn li ber zelûlî û tengasiyên wan kela Agirî dikete qirîka wan û melûl dibûn.

Birêz Çamlibêl derheqa pirtûka xwe ya bi navê "Gilîdax bêxwedî nîn e" weha got:

"Hê di xortaniya min da, min derheqa vê serhildanê gelek tişt dibihîstin û her diçû bala min dikişand û ez diketim lêkolînan, min daha zêde dipirsî, hin dibûm û tiştek ez hîn dibûm, min li mêjiyê xwe da qeyd dikir. Her wisa jî tiştên ku ser vê serhildanê hatine nivîsîn, dixwend û ji xwe ra not digirtin. Çend sal berê min biryar da ku ez romanekê li ser binivîsim. Piştî ku albuma



Seyîdreza Dêrsim — Shêx Seîd Pîran

wêneyên Pîlotê Tirk Mîralayê ku di vî şerî da beşdar bibû û wêne kişandibûn kete destê min, min got: Yilmaz, divêt tu van wênan va belgeyek dîrokî pêşkêşî gelê xwe bikî û bila ew jî bi çavê xwe vê dîrokê haydar bibin. Nevê pirtûkê jî min li ser serpêhatîke Qehremanê serhildanê Heskê Biroyê Têlî hilda. Wexta Biro tevî şervanan derbazî Îranê dibe dikeve defka eskerê Ecem. Hevalên Biro tên kuştin, Biro jî birîndar dibe. Tivinga wî di milda pişta xwe dide zindarekî û hêviya mirina xwe disene. Emirtumanê Ecem tê li ser ra disene ji Biro ra dibê: "ka tivinga xwe bide". Biro tivinga xwe teslîm nakê. Emirtuman tivingê ji piştê digre. Wî çaxî Biro dibê: **"Heywax Gilîdax bê xwedî ma!".** Min jî bersîv da vî Qehremanê netewî û got: **"Gilîdax bêxwedî nîn e!".**

Her wisa di Konferansê da û di navbera axaftinên birêz Yilmaz Çamlibêl da jî **Dengbêj Gencoyê Temo,** bi deng awazê xwe û stranên li ser vê serhildana netewî û mêrxasiya şervanên Kurd her xweştir û geştir dikir.

Wextê Konferans qediya û dor hate pirsên guhdarvanan, hemû temaşevan jî axaftinên birêz Yilmaz Çamlibêl ên tesîrkar û zarêd wîyî şirîn û wek avek herikî em gişt ji şûna xwe rakiribûn û biribûn li serê çiyayê Agiriyê û bi şervanên Agiriyê ve bibûne yek. Serketinên wan ra şad dibûn, têkçûnan va jî kelogirî dibû. Devê me gelekan ne geriya ku em pirsan jê bikin.

Wextê min dixwest ez vê nûçeyê amade bikim jî, di wê tesîrê da min nizanibû ez çawa dest pê bikim. Tenê dikarim bêjim her hebî kekê can. Zarê teyî şirîn û qelema teya tûj her hebin û tu me jî berhemên weha qedirbilin kêm nekî.

Dikarim bêjim şukur êdî kurd Dîroka xwe bi xwe dinivîsin. Xwedê me bê nivîsên camêrên wek te nehêle.

Li Belûçistanê:

# Îdam, bona pêkanîna tenahiyê



Parêzgeha Sîstan û Belûçistanê yek ji parêzgehên herî berfireh û belengaz yên Îranê ye. 2 milyon kes nifûsa wê ye û piraniya wan jî Sunî ne. Ev parêzgeha jî bi sedema siyasetên şovenîstane û şaş û herweha bi sedema xemsarî û balnedayîna rayedarên rejîmê hertim paşketî û xizan maye. Di warê bêkarî, nexwendewarî, îmkanatên saxlemiyê û avedaniyê di welat de parêzgeh herî paşmayî ye. Bi sedema hebûna sînorên hevpar bi Efxanistan û Pakistanê re bi girîngtirîn rêya teranzîtî ya madeyên bêhişker tê hesibandin.

Bi salan e ku gelek kesên bêguneh bi buxtana pêkanîna nearamî û têkderiyê û karê qaçax têne girtin, kuştin û îdamkirin. Eva jî di halekê de ye ku li gor gotina çavkaniyên rejîmê di 9 mehên borî yên îsal de, 39 kes hatine îdamkirin.

Hedad Adil, serokê Meclisa Îslamî ya Îranê di sefera xwe ya sê rojî bo vê parêzgehê ragihand ku madeyên bêhişker û hin nearamî sedemên sereke yên vê parêzgehê ne û keyfxweşiya xwe anî ziman ku hêzên Întizamî û Ewlekariyê karîne heya qasekê van pirsgirêkan çareser bikin. Herweha hişkatî, pirsa şandina gazê, rêya hesin, koçberên biyanî û rêyên hatûçûnê bi girîngtirîn pirsgirêkên vê parêzgehê da zanîn. Sefera han di demekê de hat encamdayîn ku rayedarên rejîmê qala vegeriyana aramî û tenahiyê bo vê parêzgehê dikin. Bê guman arîşe û pirsgirêkên neteweyên Îranê bi destê hikumeta Îslamî ya Îranê nahê çareserkirin. Tenê bi avakirina sîstemek demokratîk û federalî neteweyên Îranê dê bikarin maf û azadiyên xwe bi dest bînin.

**"Radio Farda"**

# Gerek Kurt Di Dîrokê De ...

**Amadekar: Nûredîn Sofîzade**

**16.11.1992:** Rojnameya **"Roja Kurdistan"**ê li cihê rojnameya **"Banga Kurdistan"**ê li bajarê Silêmaniyê de hat çap û weşandin.

**17.11.1979:** Piştî fermana cîhadê li dijî neteweya Kurd li Kurdistana Îranê de û qewimîna şerê binav û deng yê **"3 mange"** ku di rastî de hêzên rejîmê di hemû warekê de rastî têkçûnê kir. Xomeynî di vê rojê de, di peyamekê de ji bo xelkê Kurdistanê daxwaza ragirtina şer kir û biryara paşdekişana hêzên xwe da û şerê 3 mange dawî pê hat. Lê di rastî de eva jî komplo pîlaneke din bona xwe teyarkirina zêdetir bû.

**18.11.1938:** "Seyîd Reza Dêrsimî, rêberê şoreşa Kurd tevî çend hevalên xwe ji aliyê dewleta Turk ve hat lidarvekirin.

**18.11.1980:** Hêzên rejîmê li dirêjahiya cinayetên xwe di Kurdistanê de, nêzîk 20 kes ji xelkê gundê Sofiyan a Pîranşehrê bi terzekî hovane şehîd kirin.

**19.11.1986:** Di şereke dijwar di navbera Pêşmergeyên PDK Îranê û hêzên rejîmê li bajarê Rebetê de, 8 Pêşmerge ji hêza "Mîne Şem"ê, bi navên: 1. Xalid Îbrahîmî 2. Osman Elîpûr 3. Mihemed Şemî 4. Pîrot Ebdulahî 5. Resûl Mihemedî 6. Ehmed Neqşî 7. Rehman Gulistanî 8. Îsmaîl Hesenî şehîd bûn.

**19.11.1990:** Rêxistinên Nato û Werşo bi dawî hatina şerê sar îlan kirin.

**20.11.1945:** Hikûmeta Neteweyî ya Azerbaycanê bi serokatiya Cefer Pîşewerî hate ragehandin.

**20.11.1954:** Yekemîn carnameya berevanî ji mafê zarokan ji aliyê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ve hate belavkirin.

**20.11.1970:** Civata Giştî ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî endambûna dewleta Çînê di vê rêxistinê de pejirand.

**21.11.1919:** Peymanek di navbera Şerîfpaşa, nûnerê Kurdan û Boxus Paşa, nûnerê Ermeniyan li bajarê Parîsê li ser vê bingehê ku her du netewe ji nîjada Aryayî ne û xwastek û armancên weke hev anku azadiya welatê xwe hene, hate îmzakirin. Di vê derbarê de hikûmeta Osmaniyan pir hesas bû, lewma zext û givaşeke zaf xiste ser rewşenbîrên Kurd û heta dest bi daxistina rojnameya **Jîn** kirin.

**21.11.1976:** Rejîma Îraqê çend kes ji rêberên Partiya Komele ku yek ji partiyên Kurdistana Îraqê bû, îlan kirin. Di nava van kesên hatinî daliqandin de, kesayetiyên weke Şêx Şehab, Cefer Ebdulahwahid, û Enwer tên dîtin.

**22.11.1963:** Can Kinedî, Serok Komarê Amerîkayê li bajarê Dalasê de hate terorkirin.

**22.11.1998:** Rêberê Partiya "Miletê Îran"ê, **Daryûş Firûher** tevî hevjîna xwe **Perwane Eskenderî** ji aliyê mirovkujên rejîma Komara Îslamî ya Îranê di mala xwe de li bajarê Tehranê hatin terorkirin.

**22.11.2005:** Helbestvanê mezin yê Kurd **Omer Sultanî (Wefayî)** xelkê bajarê Bokanê koça dawiyê kir.

**23.11.1985:** Di êrîşekê de ku hêzên rejîmê bi çekên giran û balafiran bo ser devera Serşîw a bajarê Seqizê kiribûn, tevî berxwedaniya Pêşmergeyên PDK Îranê rûbirû bûn û rastî têkçûneke xurt hatin û pitir ji 50 kes ji hêzên rejîmê hatin kuştin. Mixabin di vî şerê giran de 4 Pêşmerge bi navên 1. Reza Hesenzade 2. Mihemed Fatihî 3. Mihemed Ferhadî 4. Ezîz Şehrî hatin şehîdkirin.

**25.11.1985:** Roja cîhanî ya rakirina hemû awayên cudahîdanan û tund û tûjî li dijî jinan.

**25.11.1985:** Hevalê giranqedir, **Kemal Debaxî**, endamê Komîteya Navendî ya PDK Îranê di girtîgeha bajarê Kirmaşanê de ji aliyê rejîma Komara Îslamî ya Îranê hate lidarvekirin û şehîd bû.

**26.11.1983:** Di şereke dilêrane de, Pêşmergeyên Hêzên **Aware** û **Simko** çûne nava bajarê Şino de û piraniya navendên dewletî ên rejîmê xistne ber êrîşên xwe. Di vî şerî de pitir ji 200 kes ji hêzên rejîmê hatin kuştin. Mixabin 7 Pêşmergên PDK Îranê di vî şerî de bi navên: 1. Qadir Îftexarî, Fermanderê Hêza Aware, 2. Xalid Nasirî, 3. Birahîm Hemzeyî, 4. Ehmed Xelîlî, 5. Seîd Eldarî, 6. Seyîd Kemal û 7. Birahîm Hemereş, jiyana xwe goriyê azadiya gel û welatê xwe kirin.

**27.11.1978:** Partiya Karkerên Kurdistana Turkiyê (PKK) bi serokatiya çend kesên di nava Akademiyayê de bi navên: Mezlûm Duxan(Egît) û Ebdula Ocalan hate damezirandin.

**27.11.2000:** Kongireya 12'an ya PDK Îranê birêve çû. Ev kongireye bi beşdariya pitir ji 130 kes ji nûneran li bajarê Kerkûkê hate lidarxistin.

**28.11.1943:** Bona parastina yekparçeyiya axa Îranê konferansek di Tehranê de bi pişikdariya Çirçîl, Rozwêlt û Stalîn pêk hat. Di vê Konferansê de biryar hate dan ku hêzên hevalbend 6 mehan piştî bi dawî hatina şerê cîhanî yê duyemîn Îranê bi cî bihêlin.

**29.11.1947:** Rêxistina Neteweyên Yekbûyî biryara parvekirina axa Felestîniyan di navbera du neteweyên Cihû û Ereb ên Felestînî da pejirandin.

**30.11.1946:** Bo cara yekemîn, fedrasiyona Navneteweyî a Jinan hate damezirandin.

**Kofî Enan Di Peyamekê De Bi Hinceta Roja Cîhanî Ya Rakirina Hemû Awayên Tund Û Tûjiyê Li Dijî Jinan de:**

# "Demekê Ku Tund Û Tûjî Li Dijî Jinan Di Holê De Be, Tu Civakek Pêşketî Nine."

*Sekreterê Giştî yê RNY'ê di peyamekê de bi boneya "Roja Navneteweyî ya rakirina hemû awayên tund û tûjiyê li dijî jinan" ji gelên cîhanê xwest, derfetekê pêk bînin ku tê de tundî û dijwarî li dijî jinan were sekinandin.*

*Deqa kemilî ya peyama Kofî Enan bi vî awayî ye:*

Tund û tûjî li dijî jinan dibe sedema xem, kul, zirargihîştin bi malbatan di nifşekê de ji bo nifşeke din û şîrovekirina civakan e. Jinan ji bikarbirina hemû hêz û şiyana xwe dûr dixe û geşeya aborî bertesk dike û pêşiyê ji pêşkevtin û geşandinê digire. Demekê ku tund û tûjî li dijî jinan di holê de ye, tu civakek pêşkevtî nine. Di meha borî de min lêkolînek belavkir ku dide eşkerekirin ku nîviya civaka mirovahiyê di bin vê bandorê de ye. Yanî di her Parzemîn, welatek û çand û kulturekê de bê li berçavgirtina dahat, çîn û qata civakî û nîjad û neteweyîbûnê tund û tûjî li dijî jinan di holê de ye, her çend em di nezma nû ya cîhanî de dijîn ku mafên mirovan ji aliyê yasayê bi fermî hatiye nasîn û ji rêya alavên navneteweyî ve hatine garantîkirin û herçiqas ku em hînbûne ku mifah standin ji mafên mirovan ji bo baştirbûna rewşa civak û cîhanê roleke bingehîn heye. Her çand ku di civîna Serokên Cîhanê di sala 2005'an de, serokan soz û peyman dan ku şiyana xwe ji bo rakirina tund û tûjiyê li dijî jinan duhember bikin, lê xebat li dijî vê belayê hewcehî bi guhertina hizra nihoyî ye ku niha jî edetî û bibingeh e, ji bo carekê û hertim dema ku keret digihîje tund û tûjiyê li dijî jinan, tu hecet û mihaneyek nayê pejirandin. Bi salan bû ku rêxistin û bizavên jinan di seranserê cîhanê de bêmandîbûn cehd û xebat kirine bona vê çendê ku tund û tûjiyê li dijî jinan ji çarçoveya taybetî ji bo çarçoveya giştî bînin der, yanî cihekê ku welat tê de bersîvder in.



Piraniya welatan qanûnên girîng û bibandor pejirandine û rêve birine û xizmetên tevgir û hesas derheq bi pirsên zayendî yên goriyên van cure tundî û dijwariyane encam dane. Herwiha pêşketinên baş di warê pêkanîna pîvanên navneteweyî de bi destve hatine.

Niha dema wê gihîştiye ku em van xebat û cehdane bigehînine asta bilindtir. Em di Rêxistina Neteweyên Yekbûyî de, divêt rolê rêberiyeke bihêztir, hevahengtir û xuyatir bilîzin. Welatên endam jî divêt di pêxema rêvebirina çarçoveya hiqûqî û siyasî ya nevneteweyî ku bi wan sozdar bûne, dixebitin. Em hemû divêt pişikdariyeke herî xurt û bibandor tevî civaka medenî bikin ku roleke pir girîng di vî warî de û di her astekê de dilîze.

Divêt em xebatê bikin ku xwezayekê çê bikin ku tund û tûjî li dijî jinan di vê de neyê pejirandin. Dema ku ev kare bi min hate dayîn da ku ez di vî warê de lêkolîn û dahûrandineke kûr û berfireh bikim, welatên endam yên Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, bi min ragihandin ku amade ne vî karî bikin. Niha bi amadebûna vê rapora lêkolînî, divêt em soz û ehdên siyasî yên hewce û çavkaniyan bixin kar. Di roja navneteweyî de bona ji holêrakirina tund û tûjiyê li dijî jinan izin bidin ku em hemû mêr û jin wekîhev tevlî vê kar û xebatê bibin.

**Jêder: "www.akhbar-rooz.com"**

# Divêt Sedem Û Alavên Tund Û Tûjiyan Li Dijî Jinan Werin Rakirin

*Bi hinceta Roja Cîhanî ya rakirina hemû awayên tund û tûjiyê li dijî jinan, Rêxistina Parastina Mafên Mirovan li Kurdistanê "RMMK"ê daxuyaniyek da çapemeniyê ku bi awayê jêr e:*

Li gor zanyariyên nirxandî yên heyî, ji destpêka îsal hetanî niha, bi sedan jinan di bajarên Kurdistana Îranê de dest bi xwekuştinê kirine ku nêzîk 30 ji sedê ya wan xwekuştinan yê bûye sedema mirin yan jî ziyan û zehiyên dijwar yên cendekî û pîsîkolojîkî yên van jinan e. Xwekujî û xweşewitandina jinan ku bi sedema tund û tûjiyên navmal û malbatê û pêwendiyên sîstema zorserdestî û mêrserdestiyê ye, li cem berçavî û mijarên din weke kuştinên namûsî û telak û cudabûn, bi giştî ji sedem û sebebên weke tehsîba olî û namûsî ya mêran di malbatê de, pêwendiyên nedirust û neadîlane yên endamên malbatê bi hev re, zewacên bi neçarî, xizanî û belengaziya aborî ya malbatê, jarî û xizaniya kulturî û nezanayî derheq bi pirsa mafên mirovan û bi taybet jinan e, bi bandor in.

Di rastî de xwekujî û xweşewitandina jinan bi awayekê nîşandana nerazîbûnê ye li hember tund û tûjî û pêwendiyên neadîlane yên heyîn û newekheviya mafên jin û mêran weke du çîn û texên serdest û bindest ên civakê.

Helbet serhejmariya jinên ku dest bi xwekuştinê dikin tenê eyankerê qasekî kêm ji wan jinan in yên ku di bin tund û tûjiyê de ne, ji ber ku hejmareke zaf ji jinên êşandî bi sedema nebûna penahgeh û piştgiriyê, neçar bi ragirtina bêdengî û pejirandina van derd û elemên edetî – dîrokî bûne. Rêxistina me Rêxistina Parastina Mafên Mirovan li Kurdistanê, xwazyarê dawîhatina tund û tûjiyên malbatî, nemaze lêdana cendekî û tund û tûjiyê li dijî jinan û rakirina hemû awayên cudahîdananan û tund û tûjiyên li ser bingeha zayendê ye ku tevî rûmet û kerameta mirovan li hev nahên. Rêxistina me herwiha xwezyarê rakirina biryara kevirbarankirinê ji bo jinan weke terzê herî hov yê tund û tûjiya bi karhatî ji aliyê hikumetê û ji holêrakirina vî terzê cezayê û parastina tenahiya hiqûqî ji bo jinan û pêkanîna wekheviyeke rastîn di navbera jin û mêran û misogerkirin û garantiya mafên bingehîn yên jinan û keçan, wekî pareke zatî, ne cudabûyî û ne cihê şandinê, yên mafên mirovan e.

Bi baweriya me îro rojê ne tenê jinavbirina tund û tûjiyê li dijî jinan dibe di serveyî armanc û programên bilez yên wijdanên hişyar û çalakên mafên jinan û rêxistinên mafê




mirovan de cih bigire, belkî divê hemû mêr û jin bi xebateke giştî tevî vê berçaviya edetî – dîrokî xebatê bikin. Bi vî awayî divêt tedbîr û çareseriyên piratîkî û siyasî, cehdên hewce û alîkariyên jin û mêran di warên cur bi cur yên civakî, hiqûqî, çandî, perwerdehî, piştgirî û lêhişyarbûnê de bihên pêkanîn û bi karanîn û rêxistinên navneteweyî, nedewletî, mafên mirovan û parêzvanên mafên jinan jî dibe lezê bidin cehdên hemû aliyan ji bo rakirin û jinavbirina sebeb, sedem û alavên tund û tûjiyê li dijî jinan.

**Serokê Rêxistina Parastina Mafên Mirovn li Kurdistanê**
**Mihemedsidîq Kebûdvend**
**Tehran,24.11.2006**

# Neteweyên Yekbûyî Û Rakirina Tund Û Tûjiyê Li Dijî Jinan

Berpirsek payebilind yê Neteweyên Yekbûyî bi hinceta Roja Navneteweyî ya rakirina tund û tûjî li dijî jinan, li ser xebatên cîhanî ji bo parastina mafên jinan tekez kir. Li gor rapora nûçevaniya Firansayê, Xatûna Sureya Ehmed Ubêyd, Midûra Sindoqa Nifûsê ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî (UNFPA) di vê derheqê de got: "Em tevî hevkarên xwe ji bo parêzvanîkirin ji mafên jinan weke saxlemiya zarokbûyînê û pêkanîna delîveyên wekhev, pişikdarîkirin û biryardanê bi wan, cehd û xebatê dikin."



**Soreya Ehmed Ubêyd**

Wê ev gotinane di peyamekê de bi hinceta 25'ê November (3'ê Xezelwer)ê, Roja Neteweyî ya rakirina hemû awayên tund û tûjiyê li dijî jinan ragihand ku seretaya xebateke 16 rojî bi piştgiriya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ji bo çareserkirina vê pirsgirêkê ye. "UNFPA" tevî rêxistinên parastina mafên jinan di seranserî cîhanê de hevdigire da ku balan bikişîne ser binpêkirina mafên jinan û bona jinavbirina wan şîretan bike.

"Loez Arbor", berpirsê Komîsyona Mafên Mirovan ya Rêxiztina Neteweyên Yekbûyî jî di peymanekê de bi vê hîncetê bal kîşande ser bextreşiya jinên penaber ku pir caran dibin goriyê qaçax û terzên din yên koletiyê.

**Jêder: "asre-nou.net"**

# Jinekê Li Merîwanê Xwe Şewitand Û Jineke Din Jî Bi Destê Malbata Xwe Hat Kuştin

"Manşêt News", Rojhilata Kurdistanê: Dîsan jineke Kurd bi navê **Şino Rewangerd** bi sedema zext û givaşa malbatê agir berda laşê xwe û xwe şewitand. Li gor nûçeyên gihîştî li Merîwanê, ev jine di nexweşxaneya vî bajarî bi sedema giranbûna birînê jiyana xwe ji dest da.



Herwiha li gor nûçeyeke din, roja 24' Xezelwerê (15.11.2006), jineke ciwan li bajarê Dîwanderê, bi navê **Kubra Xefarî**, xelkê gundê Qûçer ser bi bajarê Dîwanderê bi hêceta parastina namûsê ji aliyê malbata xwe ve hate kuştin. Di vê kiryara hovane de navhatî jiyana xwe ji dest da û bikujên wê jinê niha bi serbestî digerin.

Hêjayî gotinê ye ku ji hefteya borî şûnde, eva çaremîn nûçeyê xweşewitandin û xwekuştina keç û jinên Kurd di Kurdistanê de bi sedema deb û edet û fikr û rêbazên paremayî û kevneşop yên malbatên wan in.

# Mirina 4 Keçên Mehabadî Di Lihevketina Tirimbêlên De

**Navenda Nûçeyan ya PDK Îranê, 22.11.2006:** Roja înê, 17.11.2006'an, demjmêr 9'ê sibê, di rêya Mehabad - Urmiyê de tirimbêleke Pirayd ku 4 keçên xwendekar yên zanîngeha Azad ya bajarê Mehabadê tê de bûn, tevî Minîbusekê lihev dan çêbû û her 4 keç ku 3 ji wan xwûşkên hev bûn, jiyana xwe ji dest dan.

Navê kuştiyan navhatiye ji:

1. Sûsen Îbrahîmî
2. Sara Îbrahîmî
3. Sonya Îbrahîmî
4. Leyla Zahidî

Hêjayî gotinê ye ku her 4 keç xelkê bajarê Mehabadê ne.

## Çend Dîmen Ji Xizanî Û Destkurtiya Xelkê Di Nava Bajarê Urmiyê De

Wêne ji aliyê Kardo











# DIBISTANA NIVÎSKARAN: ÎNTERNET

**Lokman Polat**

Rojname û kovar dibistanên nivîskaran in. Niha li rojname û kovarên matbu-çapkirî- malperên elektronîk zêde bû. Kovar û rojnameyên elektronîk yên ku di înternetê de têne weşandin, bûne cih û warê nivîsînê, anku bûne dibistana nivîskaran.

Înternet tişteke wisa giranbiha û hêja ye ku li ser girîngiya wê mirov çi bibêje jî kêm dimîne. Înternet şoreşa teknîkî ye û ji bo mirovahiyê xizmeteke bêpayan e. Dinya –cîhan- bi saya wê hate guhartin û pêşveçûnên sosyal civakî pêk hatin. Înternet ji bo tevahiya gel û neteweyên cîhanê haceteke giranbiha ye, lêbelê ji bo me kurdan hîn bêtir bi qîmet e, giranbiha ye. Yanî feydeya wê ji temamê gelên cîhanê re çê bû, lê ji me kurdan re hîn bêtir bi feyde bû.

Niha di malperên înternetê de, di kovar û rojnameyên elektronîk yên kurdan de bi sedan kes bi kurdî û bi hezaran kes bi tirkî dinivîsin. Ji xêra malperên –weşanên - kurdan yên elektronîk, hejmara nivîskarên kurd gelek zêde bûye. Kesên ku berê qet bi kurdî nedinivîsand, niha di malperên kurdan de bi kurdî dinivîsin. Kovar û rojnameyên çapê li gor rûpelên standart têne weşandin. Ji bo ku hejmara rûpelên wan sînorkirî ye, ew nikarin her nivîsê biweşînin. Lewre jî ew nivîsan heldiçinin û yên diecibînin, diweşînin. Weşanên elektronîk ji hêla rûpelan ve bêsînor in û di hejmarek kovareke elektronîk de bi qasî deh hejmarên kovarên çapkirî nivîs têne weşandin. Weşandina nivîsan xwedî nivîsan teşwîqê nivîsînê dike, moralê dide wan û ew jî nivîsên nû dinivîsin û xebata xwe ya nivîsînê didomînin.

Naveroka kovar û rojnameyên elektronîk wisa dewlemend in ku mirov dikare bibêje her weşan bi serê xwe weke deryayê ye û pirrengîn e. Mirov di înternetê de li çi bigere, heye. Di malperên kurdan de li çi mijarê bigere, miheqeq li ser wê mijarê nivîs heye. Pircureyî, weşandina babetên curbecur dewlemendiya wan weşanan e.

Piraniya rêxistin û partiyên kurdan û herweha komeleyên sivîl yên demokratîk û girseyî di înternetê de malper vekirine û dest bi weşanê kirine. Di van malperan de mirov bi hêsanî dikare derbarê komele û partiyan de agahdarî werbigre û bernameyên –programên- wan bixwîne, ji çalakiyên wan hayidar bibe.

Her diçe kovar û rojnameyên kurdan yên matbû (yên ku li ser kaxiz li matbaayê têne çapkirin) kêm dibin û weşanên elektronîk yên înternetê zêde dibin. Helbet hinek weşanên kurdan hene hem weke çepkirî li ser kaxiz û hem jî di înternetê de têne weşandin. Herweke kovara **Deng**, rojnameya **Dema Nû**, Rojnama **Agirî**, **Azadiya Welat**, **Ozgur Polîtîka** û **Ulkede Gundem**. Weşanên kurdan yên înternetê, li gor periyoda rojane, hefteyî û mehane têne weşandin. Hinek malper herroj têne nûkirin, hinek heftê carekê û hinek jî weke kovarên mehane têne weşandin.

Di hinek malperan de nûçeyên filaş û nirxandinên balkêş têne weşandin. Gelek nûçeyên girîng ku di malperên kurdan de têne weşandin, di weşanên matbu -çapkirî- de nayên weşandin. Di hinek malperan de forumên gengeşiyê hene û li wir minaqeşe têne kirin. Di Paltalkê de bi zindî û di forumên gengeşiyê de bi nivîskî li ser gelek mijarên curbecur minaqeşe hene.

Ez herroj dikevim înternetê û li malperên kurdan dinêrim. Weke rojane malperên ku ez herroj li wan dinêrim û nivîs û nûçeyên wan yên nû dixwînim ev malper in: **Netkurd**, **Avestakurd**, **Nefel**, **Dengê Kurdistan** – **Kurdistana Nû** -, **Gelawêj**, **Kurdistanmedya**, **Rizgarî**, **Nasname**, **Welatparêz**, **Kurdistan Post** û **Ozgur Polîtîka**. Gelek malperên kurdên rojhilat û başûr hene. Lê, ji bo ku ew alfabeya erebî bikar tînin, ez li wan malperan nanêrim.



Ez her meh li malpera kovara Mehname, Nivîskar, Komjin, Newroz, Roja Nû, û her hefte li malpera Dema Nû, Kurd-înfo / Platform, Serbestî, Amîdakurd, Diyarname, Hançepek, Lîcelîler, Lêkolîn, Serhed, Rojname.com, Kurdistanmedya, Dengê Mezlûma, PSK Bulten, PWD Nêrîn, Azadiya Welat, Rojev û li çend malperên kurdên binxetê dinêrim. Ez ê li ser malperên kurdên binxetê nivîseke din binivîsim û di derbarê wan malperan de nêrînên xwe diyar bikim. Di vê nivîsê de ez li ser naveroka malperan, şaşî û kêmaniyên wan yan jî hêla wan a serketî nasekinim. Di nivîsa kuncikek de ji xwe nemimkûne ku mirov hemû malperan binirxîne. Lê, di demên pêş de mirov dikare car caran li ser yeko yek malperan dîtinên xwe pêşkêşê xwendevanan bike.

# Romanek Nû Ji Lokman Polat

Di vê berhemê de serpêhatiyên Robîn û Viyanê, Çalakiyên ku ew pêk tînin, macerayên bi heyecan hene. Hûnê bibînin ku Viyan jinek çiqas jîr û jêhatî ye. Robîn û Viyan du ajanên teşkîlata PARASTINê ne. Ew ji bo parastina doza netewa kurd, ji bo kurd û Kurdistanê têdikoşin. Çalakiyan pêk tînin.

Husein Muhammed dibêje:

**" Rêzdar Lokman Polat bi vê romana xwe genreya wêjeya heyecanî aniye kurdî."**

Di vê romanê de heyecan û macerayeke herikbar heye. Hûnê vê pirtûkê bi dilxweşî, lê bi heyecan bixwînin.



# KONFERANSA ZIMÊN

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com



16,17,18 û 19'yê sermawezê yên ku ji bo "4'emîn Rojên Wêjeyê Li Diyarbekirê" û her wiha 18 û 19"yê sermawezê yên ku ji "Konferansa Parastin û Perwerdehiya Kurdî" re hatibûn terxankirin, ji hêla gelek zimanzan, zimanhez û wêjevanên dilsoz ve bi coş û şaniyeke girseyî hate pêşwazîkirin. Her sal, di heman mêjûyê de ev çar rojên ku dibin hinceta gelek hevdîtin û hevnasîna wêjevan û zimanzanên kurd, tirk, ereb û kêmneteweyên din, pir bi kêfxweşî derbas dibin. Ev çar rojên têrtijî, ligel hin kêmasî û astengiyên bêyom, dîsa jî hêjayî pesinandin û qedirdayînê ne.

Ez bi xwe, ev du sal in ku beşdarî konferansa zimên dibim. Sala çû, wekî axivker û îsal jî wekî guhdêr û xebatkarekî, beşdarî konferansê, bûm. Min bi xwe him îsal û him jî sala çû gelek sûd û fêdeyên mezin ji vê konferansê wergirt. Dibe ku gelek kes van boçûnên min wekî xweşbîniyeke sivik bibînin; belê ez di vê baweriyê de me ku hemû cehd û lebat, hewldan û xebat ji bo têkûzkirin û edilandina ziman û dewlemendkirina wêjeya kurdî ye. Ji bo wê, ez pir nirx û qîmetê didim van çalakiyan. Û bi hêvî û daxwaza konfernasên têkûztirîn ên perwerdehî û pêşvebirina zimanê kurdî her kesî pîroz dikim.

Bêguman, ligel ku girîngiyeke mezin didim rojên wêjeyê jî, belê ji ber ku ez bi xwe rasterê têkildarî konferansa zimên bûbûm, ez nikarim bi awayekî objektîv nirxandina rojên wêjeyê bikim. Teqez kesên ku dê bi dorfirehî van rojên watedar binirxînin dê hebin. Ez tenê dikarim nirxandinên xwe yên der barê konferansa zimên bi awayekî bi ser re bi xwînerên xwe yên hêja re parve bikim.

Beşdarvan û axivkerên ku beşdarî konferansê bûbûn, ji çar nikarên welêt hatibûn û li ser mijarên cur bi cur axivîn û fikr û hizrên xwe anîn zimên. Ne hewce ye ku encameke glover û berbiçev ji vê konferansê derkeve û karê ku bi sedan sal pêk nayên di sê çar rojan de safî bibe. Belê gelek radeyên ku xebatên li ser zimên ber bi encameke sûdewar û erênî vedikin, derketin holê. Bi nimûne; hat diyarkirin ku, divê zimanê kurdî, bi hemû zaravayên xwe li her der û deverên dinê li gorî rê û rêpîvanên zimên were axaftin, nivîsandin û bikaranîn. Her wiha, hat destnîşankirin ku ferzkirin û zorandina zaravayekî tenê, dê xisarê bide bastûra zimên û reseniya wî bihincirîne. Ya din jî, kêm zêde derket holê ku di warê bilêvkirin û dengvedana zimanê kurdî de gelek kêmasî hene û divê ku ev kêmasî bi riya rêpîvanên rastnivîs û rastaxaftinê werin duristkirin û edilandin.

Digel ku gelek kêmasî û arîşeyên zimên hatin peyîtandin jî, pir tişt jî hatin jibîrkirin û taloqkirin. Hin axivker û beşdarvanên ku li ser arîşeyên zimên diaxivîn û li çareseriya van pirsgirêkan digeriyan bi xwe jî, pirsgirêkên nû diafirandin. Bo nimûne; kesên ku xwe wekî zimanzan nîşan didan, di axaftina xwe de, devokên herêmî bi kar dianîn. Gava ku pêşniyarên xwe yên der barê rastaxaftin(dîksiyon) û telafûzê(bilêvkirinê) dikirin, wan bi xwe peyv çewt bi kar dianîn û gelek caran zayenda peyvan tevlî hevdû dikirin. Ev yek, ne ji ber nezanî an kêmasiyên rêzimanî bûn; ji ber ku bi baldarî guh nedidan bilêvkirin û rastaxaftina zimên.

Heçku mijara konferansê ya bingehîn perwerdehiya zimên bû. Belê zêde tu kesî guh nedida perwerdehiya zimên. An jî wan bi xwe rêbazên rastaxaftin û bilêvkirinê binpê dikirin. Pirsgirêkên zimanê kurdî gelek jê ji ber van guhnedan û sersariyên bi vî awayî pêk tên. Ji ber ku zimanê kurdî bi salan hatiye astengkirin û qedexekirin, gel bi xwe jî rê û rêbazên zimên nizane. Lewre gel, an weşanên mîna radyo û televîzyonê ji xwe re mînak digire; an jî zimanzan û axivkerên ku wekî otorîte têne nasîn, wekî referans(jêder) dipejirîne. Îcar gava ku zimanzan û wêjevan bi xwe şaşiyan bikin, ne pêkan e ku gel bikaribe zimanê xwe sererast bike an jî biedilîne.

Îro zimanzan û wêjevanên ku di radyo û televîzyonan de diaxivin, zêde bi baldarî tevnagerin û guh nadin rêgez û rêpîvanên axaftina zimanê kurdî. Gel jî bi heman awayî vê şêweyê bi kar tîne û belav dike. Ziman jî bi vî awayî diçilvire û ji reseniya xwe bi dûr dikeve. Heke rê li ber vê yekê neyê girtin, dê di demek kin de zimanekî ku di tu qalib û pîvanekên rêzimaniyê de derbas nabe, pêk were.

Lidarxistina konferans û mihrîcanên perwerdehiya zimên ew qas ne zehmet e. Ya zehmetirîn, perwerdekirina rastaxaftin, rastnivîsandin û bilêvkirina zimên e. Bi qasî rastnivîs û rastvegotina nivîskî, rastaxaftin û bilêvkirina devkî jî li ser her zimanzan, nivîskar, wêjevan û hunermendî/ê ferzîndeyeke merzin e. Şaşî û xeletiya mirovekî/e naşî(nezan) bi rastiyekê diedile; belê şaşiya kesên zana û pispor bi hezar rastiyê nacebire. Lewre, ew ji hêla gel û civakê ve her gav wekî mînak û nimûne têne dîtin û pejirandin. Ji bo wê, nemaze divê kesên ku têkilî ziman û wêjeyê dibin, bêtir bi baldarî li ser vê yekê hûr bibin û xwe ji şaşî û çewtiyên ku bi salan nayên sererastkirin, reha û bêrî bikin.

Kaniya Helbestan

Letîf Epozdemir

# FECERA SİBÊ

hûr hûr bibar
mîna her car
jiyan li me
nebe dijwar
ku dilê me
neke hewar.

Lûleya tifingê/ji agir/hê sar nebû
Kûreya erdê ji xwînê têr bar nebû
Pêl pêl were
Hêl hêl here
Sêl sêl sûr be
Kêl kêl dûr be.

Sê heval hatin/rawestiyan li bin
darê
Her sê jî birnîdar bûn /ji destê
yarê
Ref ref hatin
Bi xelat in
Dest bi gûl in
Reng felat in.

Topek agir ji asîman hate xwar
Lodek ronak li navbeynê bû
cîwar.

# DİLBENGÎ

min bi pora rojê girt anî
li ber derê beheştê danî
melekan girtin bi destê Şêxê
Senanî
lê ji nav agirê dojehê deranî
lewra ciyê dildara beheşt e
min ew roj baş zanî
ne ku tenişta wan zalimên Zebanî.
Şairên eşq û evînê
Çeleng û jîr in di babeta qelemê
Lê piranî melûl û zîz in
Ji destê dûrî û elemê.

Ma Letîf ji şaire qey.
Qiyas bi Melayê Cizîrî
Diyar e xeyalek xam e
Ku bêje ez hempayê Herîrî.

Lê ev dinya, na
Ne warê xweşî û rihetiye
Do hatî îro dil bi xem diçî
Mekanê te axa sar e hey mirî.

# Encamnameya Konferansa Parastina Ziman

Konferansa Parastin û Perwerdehiya Zimanê Kurdî ku di çarçoveya 4'emîn Rojên Wêjeyê li Diyarbekirê, di navbera 18 û 19'ê Sermawezê de bi beşdariya 150 delegeyan pêk hat. Konferans ji aliyê Şaredariya Bajarê Mezin a Diyarbekirê û bi piştgiriya saziyên ku xebata parastin û pêşvebirina zimanê kurdî dikin ve hate lidarxistin. Em encamnameya konferansê pêşkêşî we dikin:

- Di konferansê de hate destnîşankirin ku meşandina polîtîkayên pişaftinê sûcekî mirovahiyê ye. Lewre ev polîtîka ji hêla beşdarên konferansê ve hatin şermezarkirin.
- Ji aliyê beşdarên konferansê ve hate destnîşankirin ku divê siyasetvanên kurd siyaseta xwe bi zimanê kurdî bikin, lewre bang li hemû sazî, dezgeh û siyasetmedarên kurd hate kirin ku siyaseta xwe bi zimanê kurdî bikin.
- Beşdarên konferansê bal kişand ser çavnebariya li hemberî zimanê kurdî û ji ber bikaranîn û handana zimanê kurdî pest û pêkutiya li ser şaredariyan şermezar kir.
- Delagasyona konferansê, pêşniyar li Hikûmeta Herêma Kurdistana Federal kir ku li herêma Parêzgeha Duhokê û derdora wê ku zaravayê kurmancî lê tê bikaranîn, perwerdehî bi zaravayê kurmancî be.
- Beşdarên konferansê diyar kir ku mafê ziman û çandê mafekî navneteweyî û demokratîk e. Li ser vê bingehê beşdarên konferansê bang li kurdên Tirkiye, Suriye û Îranê kir ku li mafên xwe yên çand û ziman xwedî derkevin.
- Beşdaran destnîşan kir ku ji bo pêşketina ziman mercên aştî û aramiyê pêwîst in. Ji bo vê yekê jî konferansa me bang li hemû derdorên têkildar kir ku ji bo pêkanîna mercên aştiyane barê ku dikeve ser milên wan pêk bînin.




- Beşdarên Konferansa Parastin û Perwerdehiya Kurdî astengkirirna televîzyon û weşanên kurdî yên mîna Roj TV, MMC û Komala TV wekî binpêkirina mafên mirovan û astengkirina zimanê kurdî dibînin û vê yekê şermezar dikin.
- Di warê fêrkirin û perwerdehiyê de divê ku alîkariyeke taybet ji bo kurdên Ermenistan, Başûrê Rojavayê welêt, re bê kirin.
- Beşdarên konferansê bang li saziyên sivîl û demokratîk ên li hemû herêmên ku kurd lê dijîn kir ku têkiliyên xwe yên civakî, çandî, hunerî û aborî xurt bikin da ku zarava û devokên kurdî ber bi hev ve werin û nêzîkî hev bibin.
- Di konferansê de girîngî û pêwîstiya Tevgera Ziman ji bo parastin û pêşvebirina zimanê kurdî hate destnîşankirirn û bang li hemû gelê kurd hate kirin ku bi hemû îmkanên xwe beşdarî xebatên Tevgera Ziman bibin.
- Konferansa me bal kişand ser girîngiya jin û ciwanan a di parastin û pêşvebirina zimanê kurdî û xwest ku jin û ciwan risteke bi taybet di parastin û pêşvebirina zimanê kurdî de bigirin ser milên xwe.
- Konferansa me gihîşt vê encamê ku teknolojî heta niha ji bo pişaftina zimanê kurdî hatiye bikaranîn. Beşdaran xwest ku gelê kurd di parastin û pêşvebirina zimanê kurdî de bi awayekî xurt ji teknolojiyê sûdê wergire.
- Konferansa me rojanebûna rojnameya A. Welat wekî gaveke dîrokî bi nav kir û xwest ku gelê kurd bi her awayî li rojname, kovar û weşanan xwedî derkeve.
- Her wekî di konferansa par de jî biryar hatibû girtin, konferansa me pêşniyar li Hikûmeta Herêma Kurdistana Federal kir da ku gav bi gav ber bi serdestkirirna tîpên latînî ve biçe.
- Konferansa Parastin û Perwerdehiya Kurdî bang li rewşenbîr û akademîsyenên kurd kir ku bi zimanê kurdî berheman bidin û li ser zimanê kurdî xebatên zanistî bikin.
- Beşdarên konferansê bang li dewletên ku kurd hemwelatiyên wan in kir ku hebûna zimanê kurdî nas bikin û ji bo parastin û pêşvebirina zimanê kurdî butçeyeke taybet veqetînin.
- Her çiqas li ber zimanê kurdî hinek astengî hebin jî, yên ku zimanê kurdî biparêzin kes û saziyên kurdan in. Tiştê girîng ev e ku kurd û kesên ku xwe kurd dihesibînin, berî her tiştî di jiyana rojane de, di danûstandinên bi her awayî de zimanê xwe bi kar bînin.

**Ji bo bersîvdana Xaçepirsa hejmaran (Sudoku)yê ya nû, tenê van sê xalên jêrîn berçav bigirin:**

**1. Hejmarên 1-9'ê di xet(xêz) û stûna serjêr de tenê carekê dubare dibe.**
**2. Hejmarên 1-9'ê di xet(xêz) û stûna çeprast de tenê carekê dubare dibe.**
**3. Hejmarên 1-9'ê di nava çargoşeke 3×3 de tenê carekê dubare dibe.**

## Xaçepirsa Hejmaran (Sudoku)

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| | | 4 | | | 2 | 1 | | 5 |
| | | | | 5 | | | 9 | |
| 2 | | 7 | 1 | 9 | | | | |
| | | 6 | 5 | | 9 | 3 | 7 | 1 |
| | 8 | 5 | | 6 | 1 | 9 | | |
| 1 | | | 2 | 4 | 7 | 6 | 5 | 8 |
| 6 | | | 7 | 1 | 5 | 2 | 8 | 9 |
| | 7 | | 9 | | 6 | 4 | | |
| 9 | | | 4 | | 8 | 5 | | 7 |

## Bersiva Sudoku a Hejmara 50'an

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 5 | 7 | 6 | 1 | 8 | 9 | 2 | 4 | 3 |
| 4 | 3 | 2 | 6 | 7 | 5 | 8 | 1 | 9 |
| 1 | 9 | 8 | 2 | 4 | 3 | 6 | 5 | 7 |
| 6 | 1 | 7 | 4 | 3 | 2 | 5 | 9 | 8 |
| 3 | 8 | 9 | 5 | 1 | 6 | 4 | 7 | 2 |
| 2 | 5 | 4 | 7 | 9 | 8 | 1 | 3 | 6 |
| 7 | 4 | 3 | 8 | 6 | 1 | 9 | 2 | 5 |
| 8 | 2 | 1 | 9 | 5 | 7 | 3 | 6 | 4 |
| 9 | 6 | 5 | 3 | 2 | 4 | 7 | 8 | 1 |

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail:
agiri2003@hotmail.com
agiri2003@googlemail.com

# Behmen Qubadî Di Nava Pirtûka Sed Fîlmçêkerên Herî Mezin Yên Cîhanê De

Derhênerê Kurd, Behmen Qubadî, yek ji 100 derhênerên sînemaya cîhanê ye ku dê navê wî di pirtûkekê de bi navê Sînema Niha (Cinema Now) bihê.

Ev pirtûke ku ji aliyê weşanxaneya bi nav û deng ya "Taschen"ê û bi serperestkirina Andro Baylî dê were çap û belavkirin. Di 600 rûpelên temam rengî yên pirtûka han de, wêne û berhemên sed kes ji derhênerên fîlman yên herî navdar û serkevtî ên niha yên cîhanê dê bide ber nirxandin.

Ji derhênerên herî navdar ku biryara nasandina wan di pirtûkê de hatiye danîn, ji bilî derhênerê serkevtî yê Kurd, Behmen Qubadî, em dikarin îşare bi Pedro Almudûwar, Alyoye Aysayas, Atom Agoyan, Alxander Gonzales, Robert Rodrîgz, Lars Fontrya, Darn Aronufskî, Nîl Cordar, Gay Marîn, Kirîstofer Nolan, Gos Wan Sant bikin.

Pirtûka "Cinema Now" di du çapên cuda û bi sê zimanî (Îngilîzî, Fransî, Almanî û Îspanî, Îtalî, Prtogalî) hevdem û di meha yekem (Janviye/Çileya Paşîn) dê li seranserê cîhanê de bihê çap û bilavkirin.

Bi pirtûka han re jî "DWD"iyên pêkhatî ji berhemên sînemayî yên 100 fîlmçêkerên navdar yên niha ên cîhanê jî dê belav bibin.



Cîgirtina hunermendê derhêner yên fîlman ê Kurd, Behmen Qubadî di nava hunermendên navdar yên sînema cîhanê ji bo neteweya Kurd rûmet, serbilindî û serkevtineke mezin û dîrokî ye.

**Jêder: "bahmanghobadi.com"**

---

# Enstîtuya Kurdî Ya Stenbolê Fermî Bû

Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê ku di sala 1991'an de li bajarê Stenbolê, hatibû avakirin, dê ji niha û pê ve bi awayekî fermî û bi navê Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê xebatên xwe bimeşîne.

Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê ya ku di sala 1991'an de ji aliyê nîvîskar û sîyasetmedarên bi nav û denq ên wekî Musa Enter, Îsmaîl Beşîkçî û Feqî Huseyîn Sagnîç ve li bajarê Stenbolê di bin banê şirketa Zend Bilîm Kultur Egîtîm Basin Yayin LTD.şT. de hate vekirin, fermî bû. Enstîtûya Kurdî ya Stenbolê ku di bin navê heman şirketê de xebatên çandî, hunerî, ziman û hişmendîya ziman meşandine, dê ji niha û pê ve bi navê Komeleya Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê van xebatên xwe bidomîne.

Derheqê komeleyê de Rêveberê Enstîtuyê, Kerem Soylu got ku hin xalên ku xistine tuzuka komeleyê de nahatine qebûlkirin û jê hatine derxistin.




Soylu, destnîşan kir ku enstîtuyê bernameya xwe li gorî Peymannameya Kopenagê û Mafên Gerdûnî amade kiriye û dê xebatên xwe bi vî rengî bimeşîne.

**Çavkan: "Presskurd"**

# Keçeke Kurd Bû Endama Parlemana Holandayê

Roja çarşem a hefteya borî, piştî hilbijartina endamên Parlemana Holandayê, keçeke Kurd ku berendamê Partiya Sosyalîst a Holandayê bû, weke endama parlemana wî welatî hate hilbijartin.



Partiya Sosyalîst a Holandayê(SP) di vê jilbijartinê de serkevtinên berçav bidestveanîn û bû partiya sêyemîn li welat de. di nava lîsteya berbijarên partiya han de navê keçeke Kurd hebû ku endametiya parlemanê ji xwe re misogerkir. Xatûna navhatî, xatûn Sadet Qerebulut, 31 salî û xelkê Dêrsim a Bakûrê Kurdistanê ye. **Çavkanî: "Manşêt News"**

# Di Du Salên Borî De Nêzîk Bi 7 Hezar Çekdarên Elqaîdê Hatine Girtin Û Kuştin

Berdevkê leşkerî yê Amerîkayî ragihand ku hêzên Amerîkî û Îraqî di midehê du salên borî de karîne nêzîk bi 7000 çekdarên rêxistina terorîstî ya Elqaîdeyê di Îraqê de bikujin yan destbiser bikin.



Kaldwîl îşare bi rola karîger a hêzên Îraqê di têkşikandina terorên terorîstî kir û herweha da zanîn ku ji tîrmeha îsal de heya niha karîne 30 berpirsên ser bi vê rêxistinê bigirin.
**Çavkanî: Peyamnêr**

# Tirkiyeyê Biryar Girtiye Ku Ew Êdî Li Firokexaneyên Xwe De Vîze Nadin Pasaportên Îraqî

Sorokatiya encumena wezîran bi hejmara 1309 ya roja 21.11.2006ê fermanek şandiye herdu balafirxaneyên Hewlêr û Silêmaniyê ku tê de hatiye nivîsandin ku li ser rapora balyozxaneya Tirkiyeyê ya Bexdayê ku şandiye ji serokwezartiyê re, Tirkiye êdî ji vî şûnde vîzeyê nade pasaportên Îraqî. Ev biryar hem ji bo pasaporên dîplomasî ye û hem jî ji bo yên kesatî ye.

Kesên bixwazin herin Tirkiyeyê divê herin ji balyozxaneya Tirkiyeyê ya Bexdayê daxwaziya vîzeyê bikin. **Çavkanî: "Nêtkurd"**